

## Coxrafi-ya netewî û coxrafiya şoreşê

»»»» R:2






## Cîrantî û Berjewendiya Hevpar

»»»» R:6




## Kurdistana Rojava li hemberî metirsiyek mezin de ye

»»»» R:7

*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (292) 20-12-2016 Buha (1000) Tûmen

# Pêşmerge, pêşeng û piştevanê xebata neteweyî ye






**Xelkê Kurdistanê di Sermaweza îsal de, bi birêvebirina çalakiyên curbicur, rêz ji roja 26'ê Sermawezê girtin, û li ser hewcehiya bihêzkirina hevbendiya neteweyî û piştevaniya ji "Rasan a Kurdistanê" pêdagirî kirin.**

Bi vê hilkevtê, roja Şemiyê 26'ê Sermawezê di yek ji binkeyên Deftera Siyasî ya PDKÎ de, rêûresmeke taybet bi amadebûna sekreterê giştî ê PDKÎ û endamên rêberî û kadr û pêşmergeyên PDKÎ û malbatên wan bi rê ve çû.
Rê û resm bi xwendina sirûda "Ey Reqîb"û bîstekê li ser pê rawestiyan bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdên rêya azadiya Kurdistanê bi taybet şehîdên "Rasan"ê dest pê kir.

Piştre peyama Komisyona Siyasî-Nizamî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ji aliyê "Rostem Cehangîrî"endamê Deftera Siyasî a Partiya Demokrat, taybet bi roja pêşmergên Kurdistanê hate pêşkêşkirin.

Rostem Cehangîrî di gotinên xwe de behsa wê kir ku: "Heyanîn niha tu hikûmeteke stemkar û serberedayî nekariye pêgeheke civakî û siyasî ya girîng ji xwe re di nava civaka Kurd de pêeyda bike, jiber ku Kurd wan dewletan wekî dagîrker dibîne, ew jî bi bê ferq û cudahî wekî dijmin çav li Kurd dikin".

Navbirî herwisa got: "Bi vê pêkê xebatkarên Kurd, rêbertiya şoreşê û tekoşîna neteweyî, û demokratîk, li Rojhilat, biryara rabûna xebatê dan, û hêza bihêz û xwedîbawer û îradeya hesinîn, ya pêşmerge jî amade û can li ser dest pêş merg û mirinê ket, û bi afirandina destanan li Şino û Kosalan û Mokiryan û Selmasê çirûska rasanê pêxistin, û bi ew qasê canfîdayî ve, qada xebatê bi panahiya Kurdistana Rojhilat germ û bigurr kirin".

Herwisa roja 25'ê Sermawezê jî, di rêûresmeke din de, ku li bajarê Sîdekan ya Kurdistana Îraqê de, bi hewla Hêza Taybet a PDKÎ li ser bilindahiyên sînorên Kurdistana Îranê bi rê ve çû, Mihemednezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ tevî pîrozbahîkirina vê rojê ji pêşmergeyan û gelê Kurd, bas ji bandora pêşmerge û cangorîtiya pêşmerge kir.
Navbirî rû li hemû hêzên şoreşger ragehand: "Qonaxa nû ya xebata Kurdistana Îranê, hewcehî bi piştgiriya tevalî ya we heye".

Navbirî derheq tirsa rejîmê ji Rasanê got: "Tirs û wehşetê tewahiya cendekê rejîmê dagirtiye, û ew rejîma ji her derfetekê nifahê werdigre bona dijatiya rasanê".
Di vê derheqê de, li bajar û herêmên curbicur ên Kurdistanê de jî, xelkê Kurdistanê û endam û alîgirên PDKÎ serbarê gefxwarinên rejîmê, û rewşa serkutkirinê di Îranê de, bi encamdayîna çalakiyan, rêz ji roja pêşmerge girtin, û digel armancên bilind ên tevgera neteweyî- demokratî a Kurdistanê û şehîdên riya rizgariya Kurdistanê peyman nû kirin.

## Sergotar

# Coxrafiya netewî û coxrafiya şoreşê

Kerîm Perwîzî



Neteweya Kurd li ser axa welatê xwe digel êrîşa bîhaniyan û dagîrkirina axa wî û malwêranî û kawilkariyê berbirû bûye, û bi sedan sal e ku di pêxeman cardin bidestxistina çarenivîsa xwe de xebatê dike.

Bi dirêjahiya dehan salên derbazbûyî û bigre sedsala derbazbûyî, bitaybet li Îranê, ev çewaşekariya dîrokî tê kirin ku, hemû neteweyên Îranê xwediyê dîrokeke hevpar in û bi aştî li kêleka hevdu jiyana xwe dewam kirine! Eva di demekî de ye ku neteweyên Turk û Kurd û Ereb û Belûç û Turkemen, bi awayekî berdewam hatine tepeserkirin û tenanet gellek caran jî hatine qirkirin. Eva dîroka hevpar nine di navbera neteweye serdest û neteweya bindest de, belkî du rûyên dîrokê ne, rûyek zulm û zordarî, û rûyê din zulm û zorlêkirî!

Di nava neteweya Kurd de bi dirêjahî û panahiya axa Kurdistanê, netweya Kurd digel zulm û zordarî û kawilkariyê berbirû bûye, û coxrafiya netewî ya wî ji Makû û Selmasê bigire heya Îlam û bajarên jêrdetir, vedigire. Lê şoreşek ku hatibe kirin, seranserî ev coxrafiya netewî li xwe negirtiye, û niha jî Rasan a Rojhilat, di qonaxên despêkî a xwe de ye, û hêj coxrafiyek berfireh li pêşber heye ku

gerek bixe bin bandora xwe. Eva xincî vê ye ku Kurd li bajarên Tehran û Îsfehan û Qezwînê jî hene û bitaybetî li Bakûrê Xorasanê bi sedan hezar kes hene ku ji aliyê deshilatdarên Îranê ve, li ser axa xwe hatine derxistin û dûrxistin.

Dema mirov li xebat û serhildnên netewî ên gelê Kurd dinêre, coxrafiya netewî û coxrafiya şoreşê di qonaxên curbicur ên dîrokê de, bi sedemên curbicur weke hev nebûne, û coxrafiya şoreşê hemû coxrafiya netewî lixwe negirtiye, ji aliyê din ve dujminê sereke yê gelê Kurd, wate rejîma sereberedayî a Tehranê, berdewam hewla hiloşandina coxrafiya netewî û netewa Kurd daye, da ku wan ji şoreşê dûr bixîne.

Hêza pêşmergeyê Kurdistanê pêşengê şoreşê ye, û erkê sereke yê pêşmerge bûye ku bi dirêjahiya dîroka serhildanan, agirê şoreşê bibe her derekî welatê xwe yê dagîrkirî. Lê niha û di vê sedsala nû de ku bi hezaran guherînkarî di bingehên zanyarî û têgihîştinêna civakê û herweha alavên peywendiyan û ...hwd çê bûne, bitaybetî di Rasana nû a Rojhilatê de, xincî pêşmerge, erkê ser milê parên din ên civakê ye ku agirê şoreşê geştir û gerimtir bikin.

Şoreşa netewî û demokratîk, şoreşek e bona vê ko hemû qat û texekî civaka Kurdistanê bi aramî û asûdeyî bijîn, û şoreşek e bona bidestveanîna azadiyê bo hemû parên civaka Kurdistanê. Şoreşa netewî-demokratîk, şoreşek e di pêxema selimandina keramet û hebûna netewî de, lewra bi peydakirina rê û mîkanîzmên pişikdariya tevaliyan, dikare geştir û ji serkevtinê nêzîktir bibe. Rasan a Rojhilat gerek pêngav bi pêngav û qonax bi qonax coxrafiya şoreşê û coxrafiya netewî, wekhev bike.

# Îsma'îl Bêşikçî serdana Deftera Siyasî a PDKÎ kir

**Îsma'îl Bêşikçî siyasetmedar,û nivîskar û rojnamevanê bi nav û deng yê Tirk serdana Deftera Siyasî a PDKÎ kir.**

Roja Şemiyê 27'ê Sermaweza 1395'an Îsma'îl Bêşikçî siyasetmedar û nivîskarê bi nav û deng yê Tirk digel "Îbrahîm Gorpos" serokê sentera Îsma'îl Bşikçî, serdana Deftera Siyasî a PDKÎ kir û ji aliyê heyeteke reveberiya PDKÎ bi serperestiya "Mistefa Hicrî" sekreterê giştî yê Partiya Demokrat bi germî hate pêşwazîkirin.



Di vê hevdîtina dostane de Îsma'îl Bêşikçî avirek da pêwendiyên xwe yên digel Partiya Demokrat û rêberên şehîd, Dr. Ebdulrehman Qasmlo û Dr. Sadiq Şerefkendî û bîranînên xwe yên siyasî yên digel Dr. Qasimlo, behis kirin, û ew mirovê mezin wekî mirovekî bibandor li ser pirsgirêka kurd û demokrasiyê de bi nav kir.

Piştre li ser Bakurê Kurdistanê û pêwendiyên digel rêberên kurd û rêyên aştîxwazane ên pirsgirêka kurd û encama hilbijartinan di parlemena Tirkiyê, û denganîna tevgera Kurd (HDP) ê di vê hilbijartinê de, ku bi dest anîbûn, piştre bi sebeba destpêkirina şer di navbera (PKK) û ertêşa Tirkiyê,ev pêvajoye têk çû, û piştre got: Rêçareya dawiyê dizivire ser careseriya bi riya diyalog û aştiyê.

Her di vê pêwendiyê de, Îsma'îl Bêşikçî îşare bi gotinên Dr. Qasimlo kir, ku gellek bi hûr û kûr li ser pirsgirêka Kurd hewil dida û siyasetên wî rewayî da pirsa Kurd di asta cîhanî û navçeyê de, û rêberiya Kurdên Bakur jî bi rêya diyalog û gotûbêjê bi rêbazekê tevbigerin, ku piştevaniya raya giştî bo aliyê xwe rabigihînin, û hêcetan nedin destê dewleta Tirkiyê ku astengiyan li ser riya wan pêk bîne, herwiha di derbarê gihîştina neteweyên Rojhilata Nawerast bi desthilata neteweyî û hindek neteweyên din li Asiya û Ewropa axifî, navbirî di gotinên xwe de got: "Ez di vê baweriyê de me, ku xebata Kurd wê bigihîje armanca xwe, û qewla bicîhanîna vê armancê jî,yekîtî û yekrêziya gelê Kurd e".

Piştî wî,Mistefa Hicrî got: Nivîs û nêrînên we bona me qîmeteke mezin hene, ku bona me Kurd û gelên din yê mafxwaz cihê şanaziyê ne, û em hêvîdar in, ku kesên weke we nimûneyê wan zêde bibin. Bê guman dibistan û dîtinên Îsma'îl Bêşikçî bona nivşên pêşerojê jî ku xebat bona azadî û mafê gelan e,ezmûneke binirx e, û di dîrokê de weke mîrate dimîne.

Piştî behsa sekreterê PDKÎ, Îsma'îl Bêşikçî li ser pêşmerge û xebata pêşmerge û xebata PDKÎ hinedek pirs ji Mistefa Hicrî kirin, û Mistefa Hicrî bersiva pirsên wî da, û bi taybet di aliyê kar û tekoşîna kadr û pêşmergeyê Partiaya Demokrat a Kurdiustana Îranê yên wê daviyê de.

Piştre Bêşikçî got; ez hêvîdar im bi berhema xebat û tekoşîna we, ji ber xebata we dîrokek xwe heye, eva her di serdema Komara Kurdsitan û Pêşewa Qazî Mihemmed û heyanî niha hebûye,û niha jî Partiya we roleke dîrokî di pêvajoya siyasiya Îranê û Rojhilata Kurdstanê de dileyîze.

Di daviya vê behsê de careke din Mistefa Hicrî ji Bêşikçî spas kir, û hêviya azadî û demokrasiyê ji gelê Kurd re kir,herwiha Îsma'îl Bêşikçî jî derheqê ronîkirina pirsên xwe li Mistefa Hicrî spas kir.

## Hejmarek din ji xortên Rojhilata Kurdistanê tevlî refên hêza pêşmerge bûn

**Hejmarek din ji xortên welatparêz ên Kurdistana Rojhilat, piştî derbazkirina dewreya despêkî, kincê pîroz yê pêşmergatiyê lixwe kirin, û tevlî hêza pêşmergeyê Kurdistanê bûn.**

Roja Înê 9'ê Çileya Pêşîn a 2016'an, rêûresma bidawîhatina dewreya 222 ya hêza pêşmergeyên Kurdistanê ku bi dewreya şehîd "Resûl Mihemedzade" hatibû binavkirin, li herêmên sînorî ên Kurdistana Rojhilat hate lidarxistin.

Rêûresmê ku bi pişikdariya beşek ji endamên rêberiya hizbê û fermandeyên Hêza Teybet û kadr û pêşmergeyên hizbê bi rê ve çû, bi xwendina sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û ragirtina bêdengiyê bona rêzgirtina ji canê şehîdan, dest bi karê xwe kir.

Di beşa din ya rêûresmê de, Mihemed Sahibî, endamê Komîteya Nawendî ya Hizba Demokrata Kurdistanê serbarê pîrozbahiya ji pişikdarên dewreyê, basek li ser rewşa Îranê bi giştî û Kurdistanê bitaybetî kir.

Sahibî di basa xwe de tekezî li ser afirandina derfetan di Îran û Kurdistanê de kir û got, "Hewce ye ku em weke pêşmergeyên Hizba Demokrat, bi tewahî xwe berhev û amade bikin, bona vê ku derfetê biafirînin, eva jî bo vê yekê ye ku mafên xwe bi dest bixin".

Mihemed Sahibî di beşek din a gotinên xwe de bas ji erkê li ser milê takên xwedî helwêst ên Kurdistanê li hember qonaxa nû ya xebatê ku bi "Rasan" hatiye naskirin kir, û ragehand ku, "Bona vê ku em bigehin mafên xwe yên zewtkirî, hewce ye ku takên civaka Kurdistanê tevlî xebatê bin û bi her awayî dikarin alîkariya vê xebatê bikin".

Di beşa din ya rêûresmê de, rapora perwerdehî ya dewreyê ji aliyê "Faroq Hesen Xeyat" ve, û herweha

peyama dewreya Şehîd Resûl Mihemedzade jî, ji aliyê "Zanyar Çûpanî" yê pişikdarê devreyê ve hate xwendin.

Piştre li gorî nerîta Fêrgeha Komisyona Perwerde ya Hizba Demokrata Kurdistanê, pişikdarên herî baş di warên nezm û disiplînê û herweha taqîkariyên siyasî û leşkirî de, ji aliyê "Rûnak Fethî" endama cîgir ya Komîteya Nawendî û herweha "Rehîm Mengurî", fermandeyê Hêza

Taybet ya Hizba Demokrat, hatin xelatkirin.

Hewceyî basê ye ku rêûresm bi çend sirûd û helbestên pişikdarên dewreyê ve hatibû xemilandin.



## Roja pêşmerge li binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de, bilind hate ragirtin




**Bi boneya 26'ê Sermawezê, roja Pêşmergeyên Kurdistanê, di binkeya Deftera Siyasî a Partiya Demokrat de, rê û resmeke taybet bi rê ve çû.**

Li gor nûçeya ku higiştiye malpera "Kurdistanmedia"yê,roja Şemiyê 27'ê Sermaweza 1395'an bi boneya roja Pêşmergên Kurdistanê,bi beşdariya "Mistefa Hicrî" sekreterê giştî yê Partiya Demokrat,endamên rêveberiyê,kadir, pêşmerge û endam û binemaleyên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, rêûresmek di binkeya Deftera Siyasiya Partiya Demokrat de bi rê ve çû.

Rê û resim bi xwendina sirûda "Ey Reqîb"û bîstekê li ser pê rawestiyan bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdên rêya azadiya Kurdistanê bi taybet şehîdên "Rasan"ê dest pê kir.

Piştre peyama Komisyona Siyasî-Nizamî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ji aliyê "Rostem Cehangîrî"endamê Deftera Siyasî a Partiya Demokrat, taybet bi roja pêşmergên Kurdistanê hate pêşkêşkirin.

Rostem Cehangîrî di gotinên xwe de behsa wê kir ku: "26'ê Sermaweza sala 1324'an, hemû pilanên dijminên gelê Kurd pûç kir, û bi sebeba hebûyîna hesta azadixweziyê û bûyîna pêşmergên Kurdistanê,xebata Kurd berdewam bûye,û vê yekê dijmin bêhêvî kiriye".

Navbirî di beşek din a vê peyamê de îşare bi vê yekê dike: "Xebatkarên kurd û rêbertiya şoreşê û tekoşîna neteweyî-demokratîk, li Rojhelat de,bûye sebeb ku biryara rasanê were dayîn,û bi bîr û baweriyeke mezin û bi îradeya polayîn, a pêşmergeyên amade û canfeda, ku li Şino û Kosalan efsane xuliqandin,û li Mukiryan û Selmas, çirûska rasanê pêxistin, wê canfedayîbûyînê xelkê Rojhelat germitr kir".

Piştre sirûdek şoreşgerî bi navê "Rasan" ji vehunandina "Selam Îsma'îlpûr" û xwendina "Xulam Fetahî" hate pêşkêşkirin.
Di nav rê û resmê de pexşanek ji aliyê şa'irê pêşmerge "mamosta Bêbeş" ve hate xwendin.

Herwiha bi vê boneyê jî peyama rêxistina jinan,rêxistina ciwanan û xwendekaran ji aliyê "Celal Rewangerd" sekreterê Yekîtiya Ciwanan ve hate pêşkêşkirin.

Di beşek din a vê rê û resmê de şa'irê bi nav û deng yê Rojavayê Kurdistanê "kona Reş" şê'irek bi navê "Pêşmerge" weke diyarî bo rê û resmê şandibû, û di rê û resmê de hate xwendin.

Her sal di roja pêşmergê kurdistanê de, ev pêşmergeyên ku 20 sal in di nav refên Partiya Demokrat de ne, û xebatê dikin, levha rêzgirtinê bi wan tê dayîn, û îsal jî "Mistefa Hicrî" Sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a Îranê, levheya rêzgirtinê da wan kesan.

"Moxtar Sohrabî û Şehram Hemîdzade" ev pêşmergene bûn, ku eva 20 sal in, di nav refên Partiya Demokrat a Îranê de xebat û tekoşîn dikin,û bona vê yekê, rêz ji xebat û tekoşîna wan hate girtin.

# Peyama Komisyona Siyasî-Nizamî bi hinceta Roja Pêşmergeyên Kurdistanê

**Rostem Cehangîrî endamê Deftera Siyasî û berpirsê Komisyona Siyasî-Nizamî a Hizba Demokrata Kurdistanê di rêûresma 26'ê Sermawezê Roja Pêşmergeyên Kurdistanê de, peyamek pêşkêş kir.**

Eva deqa peyamê ye:

Xelkê xwedî şeref ê Kurdistanê!
Mêhvanên hêja!
Endamên rêzdar ên rêberiya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê!
Pêşmerge û endamên Hizbê!

Hûn bixêr hatin bo rêûresma rojekê ku bi merema rêzgirtina ji fêdakariya xortên herî emegnas ên gelê Kurd hatiye diyarîkirin, û ew jî roja Pêşmerge ye.

71 salan berî niha û di rojeke weke îro de, û li bajarê dîroksazê Rojhilata Kurdistanê de, li bajarê Mehabadê dawî binke û sekoya dagîrkaran, û mirovkujan ên Reza Şahê Pehlewî bi destê xortên gelê Kurd, hate girtin, û dagîrkerên Kurdistanê hatin derxistin.




Her di vê rojê de, û bi destê wan xortên leheng, alaya dagîrkeran anîne xwarê, û bo yekem car alaya pîroz ya Kurdistanê, li ser avahiya herî bilin ya vî bajarî hate hildan, ew hereketa sembolîk bû bingeha avakirina dewleta Kurdî û pêkanîna Spaha Kurd û bidetsveanîna hêviyên sedansale ên neteweyekê, ku bi dirêjahiya dîroka xwe, bona vê ku wekî miroveke çav lê bihê kirin, wekî neteweyekê li ser xaka xwe bijî, û bona vê ku hebûna xwe biparêze, hewl daye û zehmetî kêşane.

Ew netewe bi dirêjahiya beşeke zaf ji dîroka xwe hatiye serkutkirin, hatiye bê serûşûnkirin, li ser mal û halê xwe hatiye derkirin, hatiye talan û îdamkirin, û bendîxaneyên wê tejî bûne ji xortên wê, û niha jî li her çar dorên wê, dijmin pîlanan dadinên da ku Kurdistanê bixin qedeman.

Rûdawa 26'ê Sermaweza sala 1324'an a Rojî, (sala 1945'an a Zayînî) hemû ew pîlan pûç kirine, û Kurd her nehatiye tunekirin. Bi sedema hebûna hizra azadîxwaziyê û hebûna pêşmergê Kurdistanê, xebata Kurd li ser rêbaza xwe berdewam e, û dijminan bê hêvî dike.

Heyanîn niha tu hikûmeteke stemkar û serberedayî nekariye pêgeheke civakî û siyasî ya girîng ji xwe re di nava civaka Kurd de pêeyda bike, jiber ku Kurd wan dewletan wekî dagîrker dibîne, ew jî bi bê ferq û cudahî wekî dijmin çav li Kurd dikin.

Bi dîroka rizgarîxwaziya gelê me de, li her kunceke xaka welatê me de, hekî derfeteke hebûbe, şoreşa Kurd serî hildaye, û li dijî dijminan derketine, û ew amadeyiya Kurdan û lehengiya wna bûye sedema vê ku dijminan hertim tirs ji Kurd hebûne.

Berxwedana hêz apêşmerge li heft dehikên borî de, belgeya selmînerê vê rastiyê ne, lewra PDKÎ 32 salan berî nihga bi berhevdana vê dîroka pirr çirûsk ya pêşmerge, roja 26'ê Sermawezê, ku hevdem roja alaya Kurdistanê ye jî, wekî roja pêşmerge hatiye diyarîkirin, û pêşniyar dike, heya ku li raserî Krdistanê de jî bê pejirandin.

Li Rojhilata Kurdistanê



Ji serdema avakiirna Komara Kurdistanê ve bigre heya şoreşa sala 47-48 (1968-1969)'an, û heya piştre ku digihîje şoreşa gelên Îranê, pêşmergê Kurdistanê xev ji cave rejîma milhor ya pehlewî zirandibûn, û girava aram li wan têk dabûn.

Piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê, û beşdariya Kurd li serkevtina vê şoreşê de, hêviyek peyda bû, ku gelê Kurd div ê beşa Kurdistanêl de, bigihîje mafên xwe ên rewa, lê her zû êrîşa kevneperestiyê li ser Kurdistanê, ew hêvî ji nav bir, û bo carek din jî rola pêşmerge li berbirûbûna horojma kevneperestiyê û dagîrkerê taze bi deshilat gihîştî, a Komara Îslamî nîşan da ku Kurd ew alî nine, ku serî bo dijmin bitewîne.

pêşmerge bi çeka herî sivik ku di detsê wê d eye , karî ku derba herî giran li hêza teyar ya rejîma Komara Îslamî bixe, ku fermana cîhadê li dijî gelê Kurd dabû, jiber ku pêşmerge li dest û çiya û li hgund û bajar li her kunceke vê nîştimana dagîrkirî, bi moral û îradeya bilind ya jiyandostiyê, û dijmin be'ecîn, berbnirûyê hêza herî hov û serkutkar ya dijminên Kurd û Kurdistanê bûye, û bihust bi bihust û kevir bi kevir a vê Kurdistanê şahidê qehremantîiya pêşmerge bûn, û mal bi malên nîştiman stargeh û çeper bûn bo pêşmergeyên rêbaza serbestî û serfiraziyê.

Piştî 20 salan ku hêza pêşmergeyê Kurdistanê liv û tevgera xwe di Rojhilata de ragirt, da ku Başûr a welat geşe bike, piştî 20 salan ku pêşmergeyên çavnetirs ên Kurdistanê, teqe ragirtin, da ku derfet bi dengê sivîl bihê dayîn, belku rejîma Îslamiya Îranê dengê gel bibihîse, piştî 20 salan ku riyên cur bi cur ên xebatê hatin cerbekiirn, hêz apêşmerghê Kurdistanê, bo carek din, û li şêwazeke din de, bi biryara serkirdayetiya xebat û şoreşê li Kurdistana Rojhilat, pê danî ser riyênjêhelçûna bi bejna çiya û geriyana di nava baxên Kurdistanê, da ku birêjne nava dilê gel de û digel evîndarên azadiyê herin jiwana xebat û berxwedanê.

Di dawiya salên 1370'î (1992)'an de, rêbertiya PDKÎ hate ser vê baweriyê ku berjewendiya bilind ya netewQeyî wisa dixwaze ku çalakiya hêza pêşmerge li Rojhilata kurdistanê guhertinê bi ser de bîne, û xebata çekdarî bi awayekî din bê sekinandin, da ku hêcetê nedin destê rejîma serberedayî û serkutkar a Komara Îslamî, ku sînorên başûra Kurdistanê binpê bike, û ezmûna sawa ya deshilatdariyê li Başûr de têk bide.

He rdi heman demê de îdi'aya vê dihate kirin, ku rejîma Komara Îslamiya Îranê pêvajoyeke bi nave reformxwaziyê tê d epeyda bûye, û Komara Îslamî renge bixwaze ku mafê xelkê bide, û çalakiya çekdarî dibe hêcetek bo baskê tundajo da ku di Kurdistanê de çi karekî nekin.

Niha piştî bîst salan ku em awiran li kar û kiryar û siyasetên Komara vÎslamî û rewşa navçê didin, em dibînin ku Komara Îslamî ne tenê ji vê derfeta bîst salan bona çareseriya kêşeya Kurd mifah wernegirtiye, belku kêşe kûrtir kiriye, û siyaseta serkut û helandin û tunekirina ferhengî û nasnameyî tundtir û pilandarêjtir kiriye, û ne tenê kêmekê jî mafê Kurdan di Kurdistanê de nedaye, belku kuştin û îşkencve û îdam û girtin û bêkarkirin û di hejariyê de hêlan û tûşkiirna wan bi madeyên hişber û dehan pîlanên din, li dijî Kurdan û neteweyên din di Îranê de bi rê ve birine, û baskê tundajo û reformxwaz û navendgir û hemiyan



pêkve tenê hewla xapandina çalakan Kurd dane.
Bîsta salan xebata çekdarî hatibû ragirtin, lê Kurdsitan wêrantir kirine, û kuştar berfirehtir kirine, û tu derfet û senaryoyek bona beşdariya medeniyane ya xelkê Kurd li birêvebirina asayî ya cihê xwe ê jiyankirinê nedan. Komara Îslamî tenê serkut û kuştar û îdam û sivikatîkirin bûne rastiyan heyî!.

Her derheq kurdistana Başûr de jî, Komara Îslamî ne tenê rêzê ji sînor û serweriya Başûşr negirt, belkû heya nav malên hizb û aliyên siyasî de jî çû pêş, û hewl da ku di her tiştî de destêwerdanê bike, û hemû hêzan berde canê hevdu, û di navxwe ya hêzan de jî girûp û desteyên cuda berde canê hevdu, da ku di dawiyê d ejî her hemiyan stûxwar û çav li destê Spaha Quds bike, da ku kêşeyên wan çareser bike, û wan li hev bîne.

Her bi gotina wezîrên Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî, di ware aborî de, Komara Îslamî pîlana vê yekê bi rê ve biriye ku Kurdistana Başûr hertim çavên wê li ser Komara Îslamî bin, ku tiştên herî sade jê re dabîn bike.

Spaha Pasdaran her demekê ku hez kiribe, êrîş kiriye ser Başûra Kurdistanê, û terror û ajawegerî tê de rê ve biriye, û heya bi pîlan û bername berê spaha hov ya DAÎŞ'ê daye Kurdistanê.

Ji aliyekî din ve Başûra kurdistanê bi hemû kêmasiyên xwe ve ku hebin, niha êdî deshilateke naskirî ye, di cîhanê de, p hevpeymanê hêzên bihêz e bedela wan şer li dijî terorê dike.

Bi vê rewşê û herwisa bi vê rastiyê, ku bihêzbûna xebat û şoreşê, li Rojhilatzextê dixe ser rejîmê, û rejîma hov û dijî mirovî ya Tehranê lawaz dike, û lawaziya rejîma Îslamiya Îranê bi qazancê hemû Kurd ekî ye li hemû beşan de.

Herwisa piştî bîsta salan hovîtî û birêvebirina siyaseta tunekirinê, ji aliyê Komara Îslamî ve êdî xelkê Kurd li Rojhilata Kurdistana bêzar bûne, û daxwazkarê detspêkirina xebateke ciddîtir û tevalî li kurdistana Rojhilat bûn .

Bi vêpêkê xebatkarên Kurd, rêbertiya şoreşê û tekoşîna netewyeî, û demokratîk, li Rojhilat, biryara rabûna xebatê dan, û hêza bihêz û xwedîbawer û îradeya hesinîn, ya pêşmerge jî amade û can li ser dest pêş merg û mirinê ket, û bi afirandina destanan li Şino û Kosalan û Mokiryan û Selmasê çirûska rasanê pêxistin, û bi ew qasê canfîdayî ve, qada xebatê bi panahiya Kurdistana Rojhilat germ û bigurr kirin.

Rasan xebata Kurde bo rizgariyê û gihîştina bi pşerojeke ronahî û geş lewra bi tenê bi hêza pêşmerge bi rê ve naçe, û dibe hemû xelk û hemû tex û qat û her yek bi şêwaz û şiyan û îmkanên xwe ve, tê de beşdar bin, û ne eva ku ew piştevanê pêşmerge, belku pêşmerge piştevanê xelkê bo serhildana yekcarî be.

Em di destpêka "rasan"ê de ne, û he rtiştek di destpêkê de, bêguman bi dûr ji kêmasiyan û alwaziyan û tiştên çavnihêrnekirî nabin, û pêşmergê qehreman ê gelê Kurd jî, bi dûr nebûye ji xalên lawaz, û birêvebirina vê xebata tund û qahîm., kêmasî jî tê de hebûne, lê deskewta herî mezin ya rasanê her di detspêkê de moralbexşîn û hêvîbexşîn bûye bi xelkê û zendeqçûna dijminê sereke ê gelê me.

Riya pêşberî me, gellek maye û evraz û nişîvên zaf li pêşberî me ne, div ê riya dijwar de jî me hewcehî bi yekbûna hemû hêz û şiyanan, û beşdariya hemû aliayne ya xelkê û fedakariya zêdetir heye. Xatircem bin ku xelkê têkoşer û azadîxwaz ê Kurd û hêza pêşmerge bi baweritir û bi pişt û penahê hevdu vê xebatê wê bigehînin encama rohn.

Bo vê armanca sere hevdengî û yekrêzî hewce ye, neteweya Kurd ji me hemiyan xebateke ciddî dixwaze, û hemû aliyên siyasî erk û wezîfeya wan e ku ji caran micidtir di vî warî de kar bikin.

Rast e ku hêza leşkerî ya rejîma Îranê teyar e, û çek û cebilxaneyên pêşkevtî di ber detsên wê de ne, lê rejîm di navxwe de pirr e ji gendelî û navmala wê bi tewahî tevlîhev e, bi awayekî ku heta ji aliyê Weliyê Feqîh ve jî nahê kontrolkirin, û bo gotina wî nakin.

Rewşa wî dia stê navnetewyeî d ejî xirap e, û tu hitbarek di asta cîhanî d etune ye. Siyaseta destêwerdana di nava karûbarên welatên herêmê tûşî şikestê bûye, û aboriyeke xirap, û herifî heye, şerê deshilatê di nava baskên wê de bi tewahî xûya ye, û hevdu qebûlkirin di nava wan de gellek zehmet e.

Hêzên çekdar ên rejîma Îranê, êdî hêza xwedî îman û îdeolojîkî nîni9n, ku xwe ji o wan deshilatdaran bidin kuştin, hekî xebateke binecî bihê kirin, bi baweriya me, bi hêza hemû azadîxwazên Îranê, ûhemû netewyeyan, û bi hevdengiya hemû hêzên Kurdistanê em dikarin paşekêşê bi rejîmê bikin.

Ku wisa bû tevegra Kurd tu riyeke din jê re nemaye, berjewendiya gelê Kurd vê yekê ji me dixwaze, ku bi îmana pêşmerge û bi hewla tevalî a civaka Kurdî, em vê xebatê bibin pêş, da ku digihîje asoyeke rohn.

Di destpêka Rasanê de, tevgera Kurd li Rojhilata Kurdistanê çendîn şehîd pêşkêşî baregeha rizgariya neteweya me kirin, ku di vir de em wan bi bîrtînin, û soz didin, ku rê û rêbaza wan bernedin, û berdewam bin û riya wna bidomînin, û me amadeyiya vê heye ku nirxeke zêdetir jî bidin div ê rêbazê de.

Hezraan silav li riha pak ya şehîdên hizb û gel û silav li şehîdên Rsana Rojhilat ku di van du salên dawiyê de, ji Selmasê ve heya Mukiryan û heya ku digihîje Kosalan û Sineya xwînîn canê xw egorî kirin.

Roja Pêşmerge li we pîroz, Ey pêşmergeyên Kurdistanê û ey pêşmerge dost

Serkeve xebata pêkvegirêdana çiya û bajar
Silav li xweragiriya Kurdistanê

Bijî pêşmerge baskê bihêz ê gel

26.09.1395
16.12.2016

## Cejna 26'ê Sermawezê li Navenda 3 a Kurdistanê de bi rê ve çû

**Bona rêzgirtina ji roja pêşmergê Kurdistanê rêûresmeke bicoş li Navenda 3 a Kurdistanê de bi rê ve çû**



Nûçegihanê "Kurdistanmedia"yê ragehand, roja Înê 26'ê Sermawezê bi beşdariya kadr, pêşmerge û malbatên PDKÎ û mêhvanên vê rêûresmê, rêûresma 26'ê Sermawezê bi rê ve çû.

Di destpêkê de, ew rêûresm bi sirûda neteweyî ya "Ey Reqîb" û ragirtina bîstekê bêdengî bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan bi taybetî şehîdên Rasanê dest pê kir.

Piştre Behmen Dêhqan sertîpê Navenda 3 a Kurdistanê, bi boneya roja pêşmergê Kurdistanê, peyamek pêşkêşî amadebûyiyan kir.

Piştre sirûda "Pêşmer tu senger î" ji aliyê korra hunerî ya Navenda 3 a PDKÎ ve pêşkêşî amadebûyiyan hate kirin.

Pexşana "hêlî sûr" ji vehunandina Mamosta Bêbeş, di beşeke din ya rêûresmê de hate xwendin.
Naveroka rêûresmê pêk hatibû, ji peyamên yekîtiyên jinan, ciwanan, û sirûdeke zarokan ên ser bi Navenda 3 li jêr navê "Min pêşmergey Kurdistanim", û herwisa pexşana "Bo Pêşmerge" ku ji aliyê "Şehrîban Dêhqan" ve hate xwendin.
Dawiya rêûresmê jî bi govend û dîlana beşdaran bi dawî hat.

# Cîrantî û Berjewendiya Hevpar



Sabir Ebdollahîzad

Bingeha peywendiyên di navbera dewletan di asta navnetewî û herêmî de berjewendiyên hevpar e. Bitaybet berjewendiyên siyasî ku bandoreke xurt li ser têkeliyên welatên rojhilata Navîn û Bakûrê Afrîqayê dike ku dîktatorî û bêqanûnî taybetmendiya wan ya sereke ye. di vê navberê de du welatên Îran û Tirkiye, weke du hêzên dagîrker di axa Kurdistanê de, xwedê rêjeyek e zor li berjewendiyên cida û hewpar in ku hin car dibin sebebê arîşe û nakokiyan û hin car jî destê wan dixin nav destê hevdu.

Yek ji mijarên ku bandorê li têkeliyên wan du welaten dike, mijara netewa kurd û maf û azadiyên wan e. beriya ku îraq û suriya weke du "dewletên ketî" bên pênase kirin, maseya dijî Kurd xwedê çar kursiyan bû lê îro di encama alûgorên herêmê û bitaybet xebat û têkoşana rewa a gelê kurd li başûr û rojava, îdî îraq û suriya nikarin bi jêbera înkarê li hemberî kurdan rawestin.

Dibe ku şerê musil û helebê di leyiza siyasî a wan du welatane de herekaya dawî an bi wateyeke din kîş û mata tu hêzekê nebe lê ev rastiyê derdixe holê ku aliyê nakokiyê heya asteke herî jor




bandorê li Îran û Tirkiye digrin û şer herî zêde, şerê berjewendiyên wan du welata ye.

Di vê çarçûvê de tiştê balkêş siyaseta nerm û hîz ya rayedarên rejîma Îranê li hemberî kiryar û çalakiyê Tirkiyê li Îraq û Suriyê de ye. Li vê jî balkêştir ev mesaj û peyamin ku di daxuyaniyên rejîmê de tên dîtin.

Dema ku bi zimanê nerm yê siyasî qala têgeha "ewlehiya komî" tê kirin pêwîstê mirov vê pirsê bike ku kîşan gef û taluke vê bandorê li îranê dike ku her car li hemberî tirkiyê zimanê nerm û hîzane bikar bîne.

Bê şik bersiva herî rast û zelal, gefa bîrokeya avakirina Kurdistanê û diyarkirina mafê çarenivîsa gelê kurd ji aliyekê û ji aliyê din mijara parastina yekrêziya xaka wan du weleta ye. Ev tiştê ku di heyama sedsala bûrî de her car bûye sebeb ku du alî di xirabtirîn rewşa peywendiyan de jî li kêlega hevdu, qala têgeha biratiyê bikin.

Ev jî tê wê wateyê ku di cîrantiya wan du dewletan de ku yek nûnertiya şîeyan dike û yê din li ser esasê rê û rêbazên sûnîtiyê tevdigere, yek alîgire mixalifeta surî ye û yek piştgiriya şamê dike, yek şîeyên îraqê dike alavê û yê din sûniyan û hwd, berjewendiya hewpar a herî girîng parastina yekrêziya xaka welat li hemberî bizav û tevgera kurdî li çar parçeyên kurdistanê û bitaybet li bakûr û rojhilat e.

Bi xurt bûna bizava azadixwaza kurd li Rojhilat bi ser navê "Rasana Rojhilat", tirkiye kîşan berjewendiya îranê binpê bike jî dibe ku encam heman bêdengî û siyaset be da ku bikaribe bi her awayî li hember kurdan baz bide û pêşiyê li mezinbûna gefa li ser yekrêziya xakê bi wateya Westfaliyayî bigre. Lê dîrokê nîşan daye ku serwerî tu car nikare li hember vîna gelan xwe li ser piyan bigre û dor yan nêzîk dê encamên erênî yên Rasana Rojhilat jî bên dîtin û pazela cîrantiyê li Rojhilata Navîn bê guhertin

# Belavokên ser bi Spaha terorîst a Pasdaran li dijî "Rasan"ê dixwînin

**Hinek kovar û belavokên ser bi Qerargah a Hemze ya "Sêyêdol Şoheda" a Spaha Terorîst a Pasdarên rejîma Îslamî ya Îranê li Urmiyê, di weşanên xwe de li dijî "Rasan" a nû ya Rojhilatê dixwînin.**

Li gorî nûçeya gehiştî malpera Kurdistanmedia yê, di doma bangeşeyên rejîmê li dijî Rasan'ê, vê care Spaha terorîst a Pasdaran, ji belavok û kovaran mifahê disitîne.

Di vê derheqê de pişka teblîxat û nûçegihanî ya Qerargah a Hemze ya "Sêyêdol Şoheda" a Spaha Terorîst a Pasdarên rejîma Îslamî ya Îranê li Urmiyê, bi belavkirina belavok û kovaran, boxtanên nerewa bi tevgera Netewî-Demokratîk a xelkê Kurdistanê dike.

Di mijarên wan belavokan de, nivîskar hewla xapandina bîrûraya giştî li hemberî Rasan'ê dide, û Rasan'ê bi tevgerek terorîstî dide zanîn.

Nivîskarên terorîst ku ser bi Spahê ne, bi qelem xwe ya genî û qirêj, Spahê bona êrîşa ser binke û baregehên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê tûj dike û di vê derheqê de rexneyan ji Spaha terorîst digire ku heya niya baregehên vê partiyê nekirine armanc.

Ew qelemfiroşên terorîst, sembolên tevgera Netewî-Demokratîk ên Kurdistana Îranê bi bîhaniyan ve girê dide û piştevanên berxwedana wan bi bîhanî û derekî didine zanîn.

Ev boxtanên Spaha Terorîst a Pasdarên ser bi rejîma Îslamî ya Îranê di demekî de ye ku Hizba Demokrata Kurdistana Îranê û tevgera Netewî-Demokratîk a Kurdistana Rojhilat, bi xwe qurbaniyê sereke yê terorîzma dewletî a rejîma Îslamî ya Îranê ye, û çendîn kes ji serkirde û endam û kadr û pêşmergeyên vê partiyê ji aliyê kirêgirtiyên Spaha Pasdaran û organên din ên terorîstî yên rejîmê di hundir û derveyî Kurdistanê de hatine teror kirin.

Rasan navê rabûna nû ya Kurdistana Îranê ye ku piştî sekinandina 20 salî a




xebata çekdarî, PDKÎ di rêûrema Newroza îsal de li çiyayên sînorî ên Kurdistana Rojhilat ragehnd.

Hizba Demokrat di nameyekî de rû li xelk û saziyên siyasî ên Îranê de nivîsandiye ku, "Xebata Hizba Demokrata Kurdistana Îranê xebatek e bo hemû xelkê Îranê, bona bilind ragirtina alayekê ye ku deshilata dîktator bi dehikane ku hewla xistine erdê ya wê dide".

Hizb Demokrat armanc ji vê xebata xwe ya nû, girêdana xebata çiya û bajar bihev re dide zanîn û dixwaze ku careke din azadiyên takekesî û civakî û netewî, ku di bin kewlên genî û reş ên deshilata rejîma Îslamî ya Îranê de hatine veşartin, der bixîne û careke din bi sernserî civaka Îranê bide naskirin.

# Nerîna Lîderan



Mistefa Hicrî: **"Bi giştî xebata me ya çekdarî, bergirîkirin ji xwe ye heya êrîşkirin".**



Erdoxan: **"Armanc ji kuştina balyozê Rûsiyê têkdana pêwendiyên me ne".**



Elcobeyr: **"Em daxwaz dikin ku cîhan di hemberî kiryarên Tehranê de bisekine".**



Elî Xamineyî: **"Îsra'îl di 25 salên bê de, wê ji nav here".**

## Kurdistana Rojava li hemberî metirsiyek mezin de ye



**Elborz Ro'în ten**




Qonaxeke din a dîroka pir ji qurbanî û çewisandin a netewa Kurd, Kurdistana Rojava ye. Jiber ku serbarê xebata çendîn sale ya xwe, hêj bê maf û tenanet bê nasname ye, lê niha yekemîn çirîska gehiştin bi mafên vê para Kurdistanê, piştî alozîyên çend salên derbazbûyî ên Sûriyê, derketine hilê.

Lewazbûna Beşar Esed bûye sedem ku ev beşa axa Kurdistanê bikeve bin kontrola Kurdan de, û hêviyek mezin çê bû bona vê ku Kurdistana Rojava jî bikare ber bi modêleke deshilatdariyê yê weke Kurdistana Başûr here, ku têde serbarê demokrasî û gehiştina bi mafên xwe yên netewî, bibe piştevanek bo parên din ên Kurdistanê jî, tenanet bi navbeynkariya serkirdeyên siyasî ên Kurdistana Başûr, pêngawên despêkî bona avakirina têkiliyên dîplomatîk û siyasî di navbera "PYD" û Turkiyê de, bi merema weha modêleke deshilatdariyê hatine avêtin, û di vê pêxemê de jî, Salih Muslim çendîn caran serdana Turkiyayê kir.

Lê di demekî Kurt de û piştî ku PYD deshilat girte destê xwe, di cihê vê de ji xewnên netewî ên gelê Kurd nêzîk bikewe, berevajî dûr ket. çendîn hokarên bûne sedem ku, ezmûna Kurd li Kurdistana Rojava bikeve bin tehlûkeyê û çavkaniya wan sedeman jî vedigere bo bidestvegirtina deshilatê ji aliyê PYD'ê li Kurdistana Rojava ve.

Di despêkê de di cihê vê de ku deshilatekî tevalî li Kurdistana Rojava dirust bibe, deshilatek yekalî hate avakirin ku rêya siyasetkirinê bi tu aliyekî din nehate dayîn, û tenanet kar gehişte cihekî ku piraniya çalakvanên siyasî ên aliyên din hatine binçavkirin û niha jî beşek berçav ji wan di girtîgehên PYD'ê de hebs in.

Eva di demekî de ye ku ev modêla deshilatdariyê ku ji aliyê PYD'ê li Kurdistana Rojava tê birêvebirin, modêlekî ne zelal e û qazancên vê

mêdêlê bo dewleta nawendî pitir e ji gelê Kurd, jiber ku daxwaza qewareyekî siyasî liser bingeha mafên netewî ya demokrasiyekî giştgîr li Kurdistana Rojava nake, belkî bi nav Xweseriyeke Demokratîk e û di pirektîk de heman îdareya Sûriye ya kevn e.

Eva di demekî de ye ku ezmûna han bi tewahî pişta xwe bi cemsera Şî'e ve girêdaye, lewra piştqahîmkirina bi vê cemserê, bi sedema hebûna dîktatorên weke Îran û Sûriyê, nikare heya serî di xizmeta gelê Kurd de be, belkî ezmûneke emirkurt, û wê di berjewendiya wan hêzên dîktator de be. Piştqahîmbûna PYD bi cemsera Şî'e karek wûsa kir ku bandorê bixe ser beşên din ên Kurdistanê jî, û bibe bi yek ji sedemên sereke bona jinavçûna piroseya aşîtiyê li herêmê, jiber ku yekemîn qonaxa alozbûna peywendiyên HDP'ê û AKP'ê, serhildana wan nerazîbûnên Kurdistana Bakûr bûn bona piştevaniya ji Kurdistana Rojava li dijî Turkiyê.

Bi siyaseta ku di çend salên derbazbûyî de ji aliyê deshilatdariya Rojava ve hatiye peyrewkirin û herweha bi hereketên vê dawiyê ên weke şewitandina Ala Kurdistanê û gotinên

Salih Muslim di Parlimana Ewrûpayê de, ku tekezî liser dijatiya wan digel Dewlet-Netew kir, û peywendiya wan bi rejîma Beşar Esed, û herweha nêrîn û bertekên dewleta Beşar Esed derheq bi maf û Kantonên Kurdan, zengeke metirsîdar e bo ezmûna Kurd li Kurdistana Rojava.

**Hekî deriyê yekîtî û biratiyê li Kurdistana Rojava bona pişikdariya hemû hêz û aliyan nehê vekirin, careke din emê ber bi tunebûneke din ve herin ku têde tirajidiya Kurdbûnê ducar bibe**

Niha ku metirsiyên weha liser Kurdistana Rojava heye, take rêya rizgariyê yekîtî û biratiya hemû hêz û aliyane. Hekî bê û deriyê yekitî û biratiyê li Kurdistana Rojava bona pişikdariya hemû hêz û aliyan nehê vekirin, careke din emê ber bi tunebûneke din ve herin ku têde tirajidiya Kurdbûnê ducar bibe.

Gerek li bîra me neçe ku derfeta han ku bo Kurdan derketiye, dîrokî ye û bi yekrêziyê dibe modêlek bona bidawîanîna çewisandina netewî ya neteweyek bêpar ji mafên xwe.

Di heman demî de birêvebirina deshilateke demokratîk ku tev alî têde pişikdar bin, garantiya berdewambûna ezmûna Kurd e, jiber ku em nikarin daxwaza azadî û demokrasiyê bikin û tenanet navê modêla birêveberiya me Xweseriya Demokratîk be, lê bi xwe demokrat nebin, nekarin pişikdariya hêz û aliyên din û bîrûraya cuda ji xwe qebul bikin, lewra gerek di wî warî de pêngawên hewce awêjîn, çûnkî hekî wûsa nekin rojên çewisandin û tepeserkirina Kurdan wê ducar bin.

## Soxra Qazî: "Rojên herî tal û nexweş ên jiyana min vedigerin bo roja şehîdketina Dr. Qasimlo û Dr. Sadiq Şerefkendî".

H: Arif Vêlzî



Gellek malbat di Kurdistana Rojhilatê de hene ku di sedsalên derbazbûyî de, bi rojan û bi heyvan û bi salan û tenanet bi dehikan, di refên Hizba Demokrat de ku nûneratiya xebata netewî a gelê Kurd li Kurdistana Rojhilatê dike, xebata siyasî meşandine û di vê pêxemê de, serbarê terxankirina hemû temenê xwe, bigre gellek ezîz û xweştewiyên xwe jî di vê pêxemê de, gorî kirine.

Soxra Qazî ya xebatkar jî, yek ji wan şêrejinên Kurdistana Rojhilat e ku, ji malbata Pêşewayê Kurdan, Qazî Mihemed e, û her digel despêka zarokatiya xwe digel bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd mezin bûye, û di pêvajoya şoreşê di çend dehikên derbazbûyî de, berxwe daye û xebata netewî meşandiye.

Soxra Qazî keça "Mirza Îbrahîmê Qazî", berwarê 18'ê Befranbara sala 1323'an (1945)'an a Rojî li bajarê Mihabadê hatiye dinê.

Soxra Qazî nasyariya xwe digel tevgera azadîxwaziya gelê Kurd bi rêberiya Hizba Demokrat weha tîne ziman: "Bi sedema girêdayîbûna malbata me digel malbata Pêşewa Qazî Mihemmed, ku avakerê Hizba Demokrat bû, ez di despêka nûciwaniya xwe de digel bas û mijarên têkilîdar bi Kurd û Kurdistanê nasyar bûm û min Hizba Demokrat nas kir".

Soxra Qazî di hevpeyvîna xwe de bas ji çavaniya tevlîbûna şoreşê û jiyana xwe ya hevpar dike û dibêje: "Dema temenê min 19 salî bû wate di sala 1342'an a Rojî de, ez daketim nava jiyana hevpar digel Hesn Şerefî de, wî çaxî hesta netewî û şoreşvaniyê di nava malbata hevjînê min Hesen Şerefî de jî zal bû û min zanî ku hevjînê min jî têkilî bi Hizba Demokrat ve heye, lewra piştî derbazbûna 3 salan biser zewaca me de, min jî tevlî hevjînê xwe weke hevbîr û bawerî dest bi xebat û tekoşînê di nava Hizba Demokrat de kir. Xebat û tekoşîna wî çaxî pir bi zehmetî bû, lê piştî herifîna rejîma Pehlewî û jinûve avabûna Yekitiya Jinan, min qonaxeke nû ya xebatê dest pê kir û heya niha jî li gorî şiyan û temenê xwe, liser xebata xwe berdewam im. Berhema jiyana min digel Hesen Şerefî 2 kur û keçek in. Zarokê me yê mezin "Kamran" ê Kurê me ye ku niha li Ewrûpayê dijî û hevdem liser erkên xwe yên Hizbî berdewam e, zaroka me ya Dûhemîn keça me ya taqane "Seyran" e ku li welatê Amerîkayê akincî ye û hevdem digel jiyana xwe ya asayî, liser erkên xwe yên Hizbî jî berdewam e, zarokê me yê Sêhemîn kurê me "Saman", naskirî bi "Karwan" e ku niha li kêleka me û di nava refên kadr û pêşmergeyê Hizbê de ye û hevdem sekreterê Yekitiya Xwendekarên Demokrata Kurdistana Îranê û endamê Cîgirê Komîteya Nawendî ya Hizba Demokrat e".





Soxra Qazî çavnihêriya xwe ji Hizba Demokrat weha tîne ziman: "Hizba Demokrat malbata mezin ya hemû Hizba ne û min tu çavnihêriyek jê nine, belkî hertim vê mafê didim Hizbê ku çavnihêrî ji min û hemû endamên xwe hebe. Çavnihêriya min ji hevjînê min Hesen Şerefî ku Cîgirê Sekreterê giştî yê Hizba Demokratê ye eva ye ku, rêya xebata ku bi çendn dehikane têde tekoşînê dimeşîne, ber nede, û heya gehiştina bi armancên xwe berdewam rêwîngê vê rêbazê be, û hevdem liser hez û xweştewî û digermiya digel zarokên xwe berdewam be".

Soxra Qazî di doma hevpeyvîna xwe de rojên herî xweş ên jiyana xwe weha tîne ziman: "Rojên herî xweş ên jiyana min, dîtina çendîn carî ya Şehîd Qasimlû bû di mala me de, herweha rizgarbûna Kurdistana Başûr û zewicîna her sê zarokên min, serbarê wan hemû zehmetiyên ser rêya jiyana wan in".

Li hember de Soxra Qazî rojên herî nexweş ên jiyana xwe weha tîne ziman: "Rojên herî tal û nexweş ên jiyana min vedigerin bo roja şehîdketina Dr. Qasimlo û Dr. Sadiq Şerefkendî. Hêjayî basê ye ku şehîdketina "Behmen" ê biraziyê min û çûne rehmetê ya dê û bavê min, û herweha birîndarketina hevjînê min di kiryarekî terorîstî de li Qendîlê, ku ji rêya teqandina tirumbêla Hizbê hate encamdan, rojên herî nexweş ên jiyana min bûn, jiber ku di dema teqandina tirumbêla Hizbê û birîndarketina Hesen Şerefî de, nîgeranê vê bûm ku Hesen Şerefî him ji destê min û zarokên min here, û him jî ji destê Hizbê here".

> **Soxra Qazî:**
>
> "Gotina min bo dayîkan û jinan eva ye ku xortên wefadar bo gelê xwe perwerde bikin, wan ji telika îtiyadê û tevlîbûna bi dezgehên ewlehî û serkutker ên rejîmê biparêzin".

Soxra Qazî di dawiyê de rû li keç û jin û dayîkên Kurdistanê dike û dibêje: "Gotina min bo dayîkan û jinan eva ye ku xortên wefadar bo gelê xwe perwerde bikin, wan ji telîka îtiyadê û tevlîbûna bi dezgehên ewlehî û serkutker ên rejîmê biparêzin. Alîkarê tevgera azadîxwaziyê û Hizba Demokrat û pêşmerge bin. Daxwaza min ji keçan jî eva ye ku asta zaniyarî û pêgihandina xwe jorde bibin, ne bo jiyana xwe ya rojane, belkî bona xizmeta zêdetir bi pêvajûya azadîxwaziyê ya gelê Kurd de, da ku dujminên gelê xwe bêtir nas bikin û tu carî pişta xwe nedin gelê xwe.

## Çend dîmenên rêûresma 26’ê Sermawezê



















# Çend helbest li ser “Rasan”ê

## Rasan

**Mihemedsalih Qadirî**

Rasane,Rabûna Rojhelat e
Çiya u bajar bû xebat e
Bizav kete tev civakê
Şikand tirsa vê hikumatê

Dayikbûna vê Rasanê
Deng wedaye tim cîhanê
Wa pesmerge li meydanê
Bûn hêviya kurdistanê

Bajar u gund pêl bi pêle
Jin u mêr e, kaljî pêre
Keç u kurjî, ref bi refe
ber bi çiya ketin rêye

Bûn Rasan û serhildan e
Ha peşmerge, ha civake
Mil bi mil û destnavdestin
Bo rizgarbûn, yek mebest in

## Rasan

**Eskender Ce’ifer**

Bi Rasana dilê gel, te agir tîn û gurr kir

Bi biryara biharan, şehîdan te xelat kir

Tu pêşmergê welat î, li her çar werz û salan

Sermaweza dilê kul, ji dil dikim te pîroz

Evîna te Demokrat, rengê şîrê dayîkan

Fîraqê dil bi êş im, tewafa vî welatî

Ji xwe rabe welato, vaye Pêşmerge hatin

Ne şerxwaz im, peyama min biratî



## Pêşmerge ne..

Konê Reş

Ezbenî! Gel mirovên neleheng nake leheng. Eger teraziya dîrokê gel be, ew terazî ji zêr e; gel bi wê teraziya xwe ya zêrîn lehengên xwe dibijêre û navê wan di bîr û baweriya xwe de tomar dike û bi demê re xebat û bizava wan jê re dibe dîrok.

Ne gereke ez navên lehengên gelê kurd bibêjim, bêguman PÊŞMERGE di serê tevan de ne.. Ewên ku navên xwe di hişê her Kurdekî dilsoz û xemxur de tomar dikin; ewên ku di şert û mercên dijwar de hebûn û berdewamiya navê Kurdistanê diparêzin, ew pêşmerge ne.. Pêşmerge ne:

Nêçîrvanên azadiyê Karwaniyên netewiyê Ew dermanên Kurdaniyê Pêşmerge ne.. Pêşmerge ne. Karwanên qonaxa dirêj Neyaran dikin gêj û mêj Pak dikin xakê ji qirêj Pêşmerge ne.. Pêşmerge ne. Nêçîrvanên vî zemanî Afrênerên Kurd- zimanî Parêzerên Kurdistanî Pêşmerge ne.. Pêşmerge ne. Şehrezayên welatê min Barhilgirên xebata min Mûm, xetîr û şemala min Pêşmerge ne.. Pêşmerge ne.

Ew sembola Rojhilat in Cegerdar û xweş lebat in Serbilindiya welat in Pêşmerge ne.. Pêşmerge ne. Ew Qasimlo û Barzan in Simko, Qazî, Bedirxan in Hebûna Kurdistan in Pêşmerge ne.. Pêşmerge ne.



## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Riya herî baş ya ku hûn hevalên xwe winda nekin eve, ne bi deyn bidin, ne jî deynan bikin.
Paul de Kock

Hevaltî şeraba jiyanê ye.
Young

Jin jî mîna qiralan in, tu carî nikanin bi kesî re bibin heval.
Lord Lyttieton

Generalê ku herî hindik şaşiyan dike, ew generalê herî mezin e.
Napoleon

Şêr jî dikane bibe deyndarê mişk.
Thomas Fuller

Têgihîştina mirovekî çiqas hindik be, ew mirov ewçend ji xwe razî ye.
Kotzebue

Buhuşt di bin lingên dayikan de ye.
Hz.Muhammed

Jin bêhêz in, lê dayik bihêz in. Dayik bêdawiya jiyanê ne.
Emile Zola

Dilê dayikê, dibistana zarokê ye.
Henry WardBeecher

Mirov dikane bi dînîtî bijî, lê nikane bi dînîtî bimire.
Young

# "Rasan" dengê lehengên Rojhilata Kurdistanê

N: Sara Mukerem

**Ey Kurdistan! Şahidê bi hezaran xem û êşan!**

**Tu kesî, wekî te, xem û êş nedît, û tu kesî wekî te, zarokên welatê xwe, di dergûşê de nehejand, nelorand, û himbêz nekir.**

**Di dema şefeqê de, wekî birûskê, law û keçên te, bi alaya Kurdistanê pêngav bi pêgav, çiyayên serkêş ên Rojhilata Kurdistanê pîvan, û bi hesreta azadiyê rondikên kêfxweşiyê li ser xaka pîroz barandin.**

**Belê law û keçên leheng, bi xwîna xwe alaya Kurdistanê dineqişînin.**

**Di dîrokê de, ew yek qedera zarokên welatê agir û rojê bûye. Belê qedera zarokên sêvî û bendewarê azadiyê.**
**Ey welat! Tu bêje, te şahidî ji egîdî û lehengiya kîjan keç û lawên xwe re neda!**

**Bêje û biqîre, bila dagîker bizanin, ku firişteyên Kurdistanê, şehîdên "Rasan"ê destanrêsiyên mezin diafirînin, û dinivîsînin.**

**Belê ew ber bi ronahiya tîrêjên rojê ve çûn, û di nava agir de sema kirin, û govenda azadiyê girtin,**
**Belê welatê ku têhniyê azadiyê ye, bi xwîna we ya sor, têhnêtiya xwe dişkîne û hawar dike,**
**Ez xwediyê xortên leheng ên Demokrat im, û tu carî serî natewînim.**

**Belê Kawe bi hesreta azadiyê, welat himbêz dike, û serkewt bi çavên pirr ji hêvî, û awirên tûj û watedar, mil bi milê hevçeperên xwe, di çeperên şer de, govenda azadiyê digre, û Resûl bi keniya xwe ya pirr şîrîn, dibe hêvinê cebirîna birînên her çar baskên kurdistana birîndar.**

**Belê şehîdên "rasan"ê bi serbilindî ve, û di payîzeke zû de, bûne mêhvanên axa pîroz,**

**Di dilê zarokên welatê min de, dîsan xeyalên nîvî mayî**
**Û Rondikên bê dawî,ku li ser rûçikên zarokên welatê min de hûr hûr, dilop dilop diherikîn,**

**Şehîd ew kes e ku wateya jiyanê di dîrokê de dinivîse**
**Û zindî dimîne, bîranînên wan, di dilê Kurdistanê de, jiber ku ez "rasan" im, û dengê lehengên Rojhilata Kurdistanê me.**



# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**1. Sebîl/qelûn**
**- Cuwa darî kutela axê tijî xwelî.**
**- Ka disojit, kadîn dimînit.**
**2. Sêl**
**- Ebdekê hey yê reş e bi guhar e.**

**3. Seet**
**- Sê tasin, sê bin tasin, sê neynîkin, sê reqasin.**
**Sê tasin, sê bintasin, sê berbûkin, sê reqasin.**
**- Ne dixwe nejî radizê, bi şev û rojê dixebite, tucarî nasekine.**
**4. Muxil**
**- Çi di xot bi serê xo werdikit.**
**- Tiştekê hey li dinê , hindî bikenê têrnabit.**
**- Ezmanê darîn e, berfê dibarîne.**
**5. Hizir/Dalxe**
**- Tiştek xoştir di hemî tişta da diçit.**
**- Dûr difirit ne çivîk e, ne giran e, ne sivik e.**

**6. Gor**
**- Bajar e, bazar nîne, sîber e, hetav nîne.**
**- Koşka tarî û bi mar, bi dûpişk û cinawar.**
**- Sindoqa Silêmanî, li hemû cî û bajaran danî.**
**- Bajêre deng jê nahêt, sûka bazar jê nahêt.**

**7. Çiya**
**- Ne mezinêt wan biçûk dibin, ne biçûkên wan mezin dibin.**

**8. Çadan/Qorrî**
**- Pîrê tê nava cumetê, heta mîza xwe neke naçe.**
**- Dê bi hir hir, bav bi zir zir, kero bê qantir.**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



